

Rostem Cehangîrî:

*"Turkiye û Îran bi şik û guman ve têkiliyan dadinên".*

···» 3



Ebdulla Hicab:

*"Qutkirina lalayiyên dayîkan li ber guhê zarokan, ji kuştina fîzîkî ne kêmtir e".*

4 «···

Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de

# AGIRÎ

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî www.agirimedia.org Hejmar (224) 19-02.2014 Buha (150) Tûmen



## Binevrazeke dijvar û asê li pêşberî gotûbêjan

**Roja 19'ê Şibata 2014'an Îran û welatên 5+1 li ser arîşeyên girêdayî bi programa navikî ya Îranê bi hev re gotûbêj kirin.**

Welatên ku bi Îranê re gotûbêjê dikin, li jêr siya Katrîn Eşton berpirsyara Siyaseta Derekî a YE'ê de kar dikin. Her du aliyan ragehandin ku gotûbêj pirr dijvar û aloz bûn. Lê hêla jî ew bi hêvî ne ku bigihîjin encameke dilxwaz.

Wezîrê Karûbarê Derve yê Îranê jî ragehand ku: "Renge em bikarin li hev bikin, hekî aliyê hemberî me niyet û meremeke baş hebin". Ev gotina navbirî di demekê de ye ku Xamineyî ragehandiye ku ew bi van gotûbêjan xweşbîn nine".

## Sergotar

### Piştî 35 salan şoreşê



Şehab Xalidî

35 sal bi ser şoreşa gelên Îranê re derbaz bû, û zulm û zorî, îşkence û îdam, birsîtî, û bêkarî êdî bûne sembola nasîna Komara Îslamiya Îranê di herêm û cîhanê de. 35 sal derbaz bûn û her niha jî diruşma "Merg û mirin bo Amerîkayê" diruşmeke ku weliyê feqîh û peyrewên wî, xelkê pê dixapînin û vê diruşmê û anîna bi zorî ya beşeke zêde ji xelkê bo ser şeqaman dikne pêxor û xûreka propagendeyî ya ragehandinên xwe.

Herçend piştî hatina Rûhanî û lihevkirina Îranê û welatên 5+1, gellek kes li ser vê baweriyê bûn ku êdî vê carê Amerîka dê bêhneke rehet vede, û kes nabêjê "Mirin bo Amerîkayê", lê vê diruşmê dîsan bi başî û zelalî selimand ku tu guherînkarî di sîstema Komara Îslamî a Îranê de pêk nehatiye, û weliyê feqîh ku li serveyî yasaya bingehîn e jî, û heya yasayên Îslamî jî ji bo berjewendiya deshilta xwe dikare biguhere, axavtina destpêkê û ya dawiyê jî her ew dike.

Her eva ku di van rojan de ragehandiye ku ew bi gotûbêjan xweşbîn nine, bixwe nîşana vê ye ku herçend wan bi sedema zexta zêde ya gemaroyan stûyê xwe li hemberî Rojavayiyan de tewand, lê dîsan jî ew naxwazin ku zêde nermiyê li hemberî Rojavayiyan de ji xwe nîşan bidin.

Lê bi giştî em dikarin bêjin ku ew rewş demikî ye, çimku tu altirnatîveke din ji çêkirina bombeya navikî, û destêwerdana di nava karûbarên welatan baştir nikare deshilata wan ji hiloşînê rizgar bike, û ew yek dîsan jî di dirêheyam de bo Rojavayiyan wê eşkere be, ku rejîm tenê û tenê demkujiyê dike bo gihîştina bi armancên xwe. Rojên pêşiya me dê zêdetir vê rastiyê eşkere bikin.



# Daxuyaniya Deftera Siyasî a PDKÎ bi boneya bidawîhatina 6'mîn pilînoma Komîteya Nawendî



Daxuyaniya Deftera Siyasî a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi boneya bidawîhatina 6'mîn pilînoma Komîteya Nawendî a hilbijartiyê kongireya 15'e rojên 12-14 Rêbendana sala 1392'an a Rojî (1-3 Şibata sala 2014'an a Zayînî) pilînoma şeşemîn a Komîteya Nawendî a hilbijartiyê kongireya 15'mîn a PDK Îranê beşdariya endamên rêberî û nûnerên komîteyên partiyê bo karûbarên derveyî welat birêve çû.

Pilînomê bi ragirtina deqeyekê bêdengî bona rêzgirtin ji riha pak ya şehîdên Kurdistanê dest bi karên xwe kir û piştre sekreterê giştî yê partiyê rêzdar Mistefa Hicrî destûra karê pilînomê xist ber dengê beşdaran û piştî pejirandinê, rapora siyasî pêşkêş kir.

Raporê guherînkariyên herêma Rojhilata Navîn û beşên cuda cuda ên Kurdistanê û herweha hikûmetên ku Kurdistan bi ser wan de hatiye parvekirin,di heyama navbera du pilînoman de xistibû ber bas û piştî nîqaş û gengeşeyek zaf, ji aliyê beşdarên pilînomê ve hate pejirandin. Derheq bi guherînkariyên Rojhelata Navîn, raporê îşare bi rewşa ne baş a ewlehiya beşek ji welatên vê herêmê kiribû ku piştî guherînkariyê ku bi Buhara Erebî hatibû naskirin derketine holê û, li welatên weke Sûriye û çend welatên din ên Afrîqayî bi awayên curbicur berdewam in û mideheké dixwaze ku cardin rewşa ewlehî di wan welatan de cihgîr be, di raporê de ev mideh wekî heyama veguhaztinê (gozar) hatibû naskirin.

Rapor li ser vê baweriyê bû ku her du rejîmên Sûriye û Îran ekterên sereke ne di aloziyên siyasî ên herêmê de: Sûriye piştî du salan kuştar û wêraniyê, hêj nawenda aloziyê ye û bandor xistiye ser guherînkariyên siyasî ên herêmê bi taybet wlatên cîran.

Hekî di despêka serhildana alozî û nerazîbûnên xelkê wî welatî û kuştara xelkê nerazî û wêrankirina welat bi fermana Beşar Esed, civaka navnetewî û beşek ji welatên herêmê bitaybetî Turkiye û Erebistana Si'ûdî daxwazkarê dûrxistina Beşar Esed ji hikûmetê bûn û bo vê meremê jî her yek ji wan bi awayekî alîkarî digehandin opozisyona Sûriyê, bi domkirina vê rewşê û destêwerdanên Îranê di aloziyên Sûriyê de û gehandina alîkariyên tevalî û micid bi hikûmeta Beşar Esed ji aliyekî, û kombûna hejmareke berçav ji endam û alîgirên Elqa'îdê di Sûriyê de û şerkirina wan li dijî artêşa Sûriyê û heya li dijî Artêşa Azad, bûne sedema çêbûna şik û gumanê li ser pêşeroja Sûriyê û di encama van guherînkariyan de alîkariyên Rojava ji boy opozisyonê ber bi kêmbûnê ve çûn û destê Beşar Esed jî bona tepeserkirin û wêrankirinê vekirîtir bû.

Rewşa han sedema sereke ya guherînkarî di siyaseta piraniya wan welatan de bû ku pirograma xwe li ser vêdebirina Beşar Esed li ser deshilatê darêtibûn. Ji aliyekî din ve Komara Îslamî piştî 25 salan karkirin li ser mehandina Oraniyomê bi merema çêkirina çekên navikî û mezaxtina bi sedan milyard dolarî ji dahata xelkê di vê pêxemê de, di encam de li hemberî dorpêçên Amerîka û civaka navneteweyî de bi çok de hat û roja 24'ê Çiriya Paşîn a sala 2013'an, li Jinêvê bi neçarî stûyê xwe di hemberî wajûkirina lihevhatinekê de tewand, ku tewahiya armanc û xwastekên civaka navnetewî têde hatibûn, lê li hemberî vê paşekişê de jî, tenê hindek poanên hûr û piçûk wergirtibû.

Bi vî awayî hindek guherînkarî di siyaseta wan welatan de pêk hat ku peywendiyên xwe tevî Komara Îslamî kêm kiribûn. Derheq bi rewşa navxwe ya Îranê, raporê îşare bi vê rastiyê kiribû ku di heyama 5-6 heyvên derbazbûyî de serkut û zext û givaş û zalbûna rewşa ewlehiyê, bêkarî, binpêkirina mafên mirovî ên xelkê bê dahat, giranî, nesaxiyên civakî ku encama siyasetên rejîmê ne, ber bi zêdebûnê ve diçin, û hejmara bidarvekirinan ber bi zêdebûnê ve çûye, berevajî sozên Rohanî di dema hilbijartinan de, pêvajoya bûyeran beravajî wan soz û peymanan diçin pêş. Bi kurtî teslîmbûna Komara

Dom: R:6

# Rostem Cehangîrî Endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ: "Ew dostên stratejîk nînin û hertim bi şik û guman ve têkiliyan dadinên, yanî bi dil hevdu naxwazin, lê li ser hinek pirsan bi hev re yekdeng in, bi taybetî heya niha jî li ser pirsa Kurd mixabin ew yekdeng in ku alîkariya hevdu bikin".



**Heyamekê berî niha hate ragehandin ku Turkiyê ji riya "Mît"ê ve zanyarî li ser hinek kesan ku ji Îsraîlê re dixebitin, dane Îranê, û Îranê jî ev kes girtin. Lê serbarê wan alîkariyan, dîsan em dikarin bêjin ku Erdoxan nekarî di vê serdanê de, serkevtinê bi dest bixe.**

**Turkiye bi sedema aloziya ku heyamekê berî niha bi sedema eşkerebûna gendeliya malî pêre berbirû bû, û herwisa niha jî ku hilbijartina şaredariyan li pêşiya wan e, di rewşeke hestiyar de ye. Herwisa Erdoxan jî di van rojên dawiyê de serdana Îranê kir ku serdana wî li gorî gotina hinek ji şirovekarên siyasî, girêdayî vê rewşê bû. Her di vê derheqê de me xwest ku em bîrûboçûnên rêzdar Rostem Cehangîrî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ jî bizanin, û me çend pirs lê kirin û navbirî jî bi vî awayî bersiva pirsên me da:**

**H: Agirî**

**1-Gelo serdana Erdoxan çi deskevtek bo dewletaTurkiyê hebû?**

Bi hizra min serdanên serokwezîrê Turkiyê bo Îranê, berî van kêşeyên navxweyî û berî gemaroyên Rojava û bi taybetî Amerîkayê jî her hebûn, ji bîra me neçe ku Îran û Turkiye du welatên mezin in, çi di warê nifûs û hêza leşkerî, û çi jî di warê coxrafiyayî de, û sînoreke dûr û dirêj û berjewendiyên hevpar bi taybetî di warê ewlehiyê de bi hev re hene.

Hûn dizanin ku li ser pirsa Kurdan her du welat pêkve hev hizr in, yan jî bo wan pirsgirêkek wekhev e, lewra gellek asayî ye ku her du welat hatûçûna hevdu bikin, lê serdana vê carê ya Erdoxan bo Îranê çend sedem hebûn:

1-Li ser pirsa Sûriyê, Turkiye û Îranê nakokî pêkve hene. Turkiye dixwaze ku rejîma Beşar Esed nemîne, û deshilat bikeve destê wan partiyên ku nêzîkî Turkiyê ne, û Îranê di wir de gellek bi tundî pişta dewleta Sûriyê girtiye, û wê hevalbend û dostê stratejîk e xwe dizane.

2-Piştî sistkirina hisarên aborî û bazerganî li ser Îranê, bo Turkiyê giring e ku digel Îranê bigihîje lihevhatinekê, û bo wê qazanc e, bi taybetî di warê kirîna neft û gazê, û derbazkirina boriya gazê ji Turkiyê re bo Ewropa. Di wir de ya diyar e ew e ku hêla jî ew negihîştine lihevhatiekê, lê ez bawewr im ku di pêşerojê de ew ê bigihîjne rêkevtinê, jiber ku qazanc bo her du aliyan heye.



3-Pirsa din ya ewlehiyê ye ku gellek bi hêsanî digel hevdu digihîjin rêkevtinê, û vê carê jî gellek bi rehetî lihev kirin. Diyar e ku niha li hemberî Îsraîlê de jî her du alî, alîkar û hev hizr in. Bo mînak, heyamekê berî niha hate ragehandin ku Turkiyê ji riya "Mît"ê ve zanyarî li ser hinek kesan ku ji Îsraîlê re dixebitin, da Îranê û Îranê jî ev kes girtin. Lê serbarê wan alîkariyan, dîsan em dikarin bêjin ku Erdoxan nekarî di vê serdanê de, serkevtinê bi dest bixe.

**2-Gelo bi raya we, ew serdan pêwendî bi kirîza wan rojên dawiyê û kêşeya wan digel Gulen hebû, yan ne?**

**Bersiv:** Bi baweriya min eva hinek digel rastiya heyî yek digre, lê nikare hemû tiştek be. Rêkxirawa Gulen ku rêberiya Îslamiya Sunî dike, piştevaniya hemû dewlet û rêkxirawên Îslamî ên Sunî dikin ku li dijî Îranê ne, lê bi baweriya min ew qas bes nine ku bikarin li ser têkiliya Îran û Turkiyê, bandora xwe ya micid hebe, lê dikare hinekê bandor hebe. Bi bawera min Îran di navbera Fethulla Gulen û Erdoxan de, wê Erdoxan hilbijêre.

Jiber ku Erdoxan du taybetmendî hene, yekem Erdoxan Îslamiyeke nermrew e û naxwaze şerê Şî'e û Suniyan çêbe, û ev yek ji bo Îranê poanek e. Duyem eva ku Erdoxan serokdewlet e û Îran jî dizan e ku di hilbijartina pêşiya Turkiyê de, dîsan Erdoxan wê li ser deshilatê be, lewra wê pişta Erdoxan bigre.

**3-Gelo çima di Turkiyê de gellek rexne ji şêweya pêşwazîkirina ji Erdoxan hatne girtin?**

**Bersiv:** Hûn dizanin ku partiyên opozisyon li Turkiyê hertim partiya deshilatdar rexne dikin, lê vê carê hem partiyên opozisyon û hem jî hevalbendên berê ên Erdoxan, wate baskê Gulen wî rexne dikin ku ew sefera zêdetir bûye reklama hilbijartinê, heya serdaneke dîplomatîk û bazerganî.

Jiber ku di Turkiyê de, carê bi qise be, yan bi rastî, pirsa gendeliyê li ser partiya Erdoxan her wekî xwe maye û çareser nebûye.

Yek ji çiqên vê gendeliyê digihîje Îranê. Banka Gel ya Turkiyê ku bi sedema berdewamiya danûstandinên zêr û pere digel Îranê hate tawanbarkirin, û neyarên Erdoxan, Îranê wekî aliyekî din ê vê gendeliyê dizanin, lewra ew sefera Erdoxan bi tundî rexne kirin. Herwisa welatên rojavayî û bi taybetî Amerîka vî karê Turkiyê rexne dikin û weke binpê kirina biryara navneteweyî dizanin û gemaroyên ser îranê şikandine.

**4-Hûn pêşeroja têkiliyên di navbera Turkiye û Îranê de çawa dibînin, bi taybetî piştî vê serdanê, hûn bêjin ku dijayetiya Turkiyê digel Beşar Esed, pêwendiya Îran û Turkiyê sar ranegire?**

**Bersiv:** Her wekî hûn dizanin me di bersiva yekemîn de, îşare pê kir ku pêwendiyên di nabera Îran û Turkiyê de, wê her berdewam bin, lê hinek caran pêwendî sar û germ dibin. ji berku her du aliyan hewcehî bi hevdu heye û pirsa Sûriyê nikare vê yekê têk bide, lê sîberê dixe ser.

Di rastî de Îran nûneratiya baskê Îslamiya Şîe dike, û Turkiye jî xwe wekî nûnerê baskê Îslamiya Sunî dide naskirin. Di vir de her du alî di warê bîr û hizir de li dijî hev in, û Turkiye welateke Laîk û endamê Nato ye, mezinhêzeke herêmê ye û gellek caran li dijî berjewendiyên Îranê pêngavan davêje, û Îran jî her wisa.

Lewra gellek caran berjewendiyên wan digel hev yek nagrin, lê bi dirêjahiya dîrokê her du welatan hertim pêwendiya dîplomasî û aborî û ewlehî û hinek caran jî alîkariya leşkerî jî bi hevre hebûne, bo mînak li ser pirsa Kurd hertim bi hev re alîkarî kirine, û li ser çûna bo nav tixûbên hevdu û şopandina şoreşgerên Kurd li hev kirine.

Eva gellek caran me bi çavên xwe dîtiye û hatiye cerbandin, lê dîsan dibêjim ku ew dostên stratejîk nînin û hertim bi şik û guman têkiliyan dadinên, yanî bi dil hevdu naxwazin, lê li ser hinek pirsan bi hev re yekdeng in, bi taybetî heya niha jî li ser pirsa Kurd mixabin ew yekdeng in ku alîkariya hevdu bikin. Lewra hertim têkiliyên wan sar û germ bûye, lê tu caran qut nebûye.

Li ser Sûriyê siyaseta li dijî hev bi kar tînin, lê bi hizra min pêwendiyên wan bi vê hindê nasekine.



# Ebdulla Hicab: "Gelê kurd bi sedan salan bi zimanê Erebî dersên dînî xwendin, û bi zimanê xwe yê xweş ên zikmakî jê fam kir û ew mekteb şirove kir û jê fêr bû, lê rojekê jî wisa nefikirî ku zimanê Erebî ji zimanê kurdî re metirsî ye".

**Hemû salê di meha Şibatê de zêdetir ji demên din bas ji pirsa ziman û metrsiyên li ser riya zimanên neteweyan di Îranê de tê kirin. Evsal bi sedema vê ku ferhengistana ziman û edebiyata Farsî xwendina bi zimanên din wekî metirsiyekê bo ser zimanê Farsî hesibandibû, vê yekê gellek dijkiryar li pey xwe anîn. Her di vê derheqê de me xwast ku bi kurtî raya rêzdar Ebdulla Hicab çalakê siyasî jî di vê derheqê de bizanin, û navbirî jî bi vî awayî bersiva pirsên me da:**

**H: Agirî**

**1-Gelo hûn rewşa zimanên neteweyên bindest çawa dibînin?**

**Bersiv:** Vegeşîn û pêşveçûna ziman bi derfetên siyasî û rêjeya beşadariya her gel û neteweyekê li serweriya neteweyî de girêdayî ye. Zimanên neteweyên bindeste Îranê, ji wan zimanên Kurdî, Turkiya Azerbaycanê û Belûçî, Erebî û Turkemenî xwediyê hemû taybetmendiyên zimanên zindî yên cîhanê ne.

Bi her yek ji wan zimanan bi hezaran berhemên wêjeyî, koltorî, zanistî û zimanevanî hatine nivîsandin. Rêjeya nivîsandina berhemên siyasî bi wan zimanan hê zêdetir e. Ji xwe zimanê Erebî statûyek pir ji statûya zimanê Farsî bilindtir heye û weke yek ji şeş zimanên fermî di asta cîhanî de tê naskirin. Lê di bin siya Komara Îslamî de bi hemû wan zimanan re weke zimanên ne fermî û zimanên ku hêjayî jiyanê nebin danûstan tê kirin.

Siyaseta Komara Îslamî di derheqa zimanên neteweyên derveyî desegelan, qutkirina lalayiyên dayîkan li ber guhê zarokên wan yên sawa ji tunekirin û kuştina fîzîkî ne kêmtir e. Lewma ew nêzîk bûn weke yek ji tawanên herî mezin ên




dijî mîrateya mirovayetiyê pêwîste bê dîtin.

**1- Gelo raya we li ser gotinên ferhengistana edebiya Farsî, û êrîşa bo ser zimanê neteweyan çi ye?**

**Bersiv:** Ew nêzîk bûn weke heneka dîrokê ye. Heya niha em bi siyaset û sîstemek dîktator re rûbirû bûn. Bi wê dîtinê, xuya ye ku emê bi dîktatoriyek koltorî re jî rûbirû bibin. Ji eqlaniyetê bi dûr e ku rewşenbîr û pêşengên neteweyekê hebûna ziman û koltora xwe di tunekirina yên din de bibînin. Zimanê kurdî ji dema avabûna dewletên ji Kurdan bîhanî re heya îro her tim qedexe bûye û derfeta nivîsînê jê re nehatiye dan, lê ma gelo ev ziman ji nav çû?
Gelê kurd bi sedan salan bi zimanê Erebî xwendina dînî xwend û bi zimanê xwe yê xweşe zikmakî jê fam kir û ew mekteb şirove kir û jê fêr bû, lê rojekê jî wisan nefikirî ku zimanê Erebî ji zimanê kurdî re metirsî ye.

Her weha digel Mewlûd û Mem û Zîn a hezretê Xanî, şiroveyên quranê bi zimanê kurdî, Bûstan û Gulistana Se'idî Şîrazî jî xwendin û tu demekê ew ziman ji hebûn û zimanê xwe re weke reqîb an metirsî nedîtin. Ji ber ku her tim bawerî bi kûrahiya ziman û bingeha wê ya bi hêz hebûn. Lê xuya ye ku pêşengên îro ên zimanê Farsî, ziman jî kirine emrazek siyasî û di siyasetê de jî bawerî bi xwe û pêşeroja xwe nînin.

**2- keko komara Îslamî biryar da ku gellek zarokên Efxanî ji xwendegehên xwe de derxîne, (eva nûçeya VOA bû), hûn vê biryarê çawa dinirxînin, di demekê de ku Îranî bixwe di welatên derekî de digihîjne astên herî bilind, lê Îran weha belayê tîne serê zarokên Efxanî di Îranê de?**

**Bersiv:** Bi giştî siyaseta perwerdeya Komara Îslamî siyasetek paşvero û li dijî pîvan û prensîpên merivatiyê ye. Lê di çarçoveya derfet û sîstema heyî de jî, xwendekarên jîr dikarin carna derfeta derbasbûn ji kevneperistî û gera li pey rastiyê bi dest bixin.

Lewma çûna dibistanan û berdewamkirina xwendinê heta di bin siya Komara Îslamî û di çarçoveya siyaseta wê ya perwerdeyê de jî her îmkaneke ku pêwîste bê bi kar anîn. Lê xuya ye ku Komara Îslamî wê derfeta biçûk jî ji hemû rûniştvanên welat re rewa nabîne.

Siyaseta Komara Îslamî li hember xelkê Efxanistanê bi giştî û ewên ku ji siyaseta wê ya zêdexwaziyê re nabin emraz bi taybet, ji mêjve ye naskirî ye. Pêwîst e ew kiryarên dawiyê ên rêjîmê li dij zarokên Efxanî di dibistan û xwendingehên Îranê de, di vê çarçoveyê de bê dîtin.



# Nerîna Lîderan


Ocelan:

"Destkariya dengê min hatiye kirin û ew vîdeo montajkirî ye".


Exzer Îbrahîmî:

"Daxwaza lêborînê ji xelkê Sûriyê dikim ku min nekarî tu karekî bo wan bikim".


Can Kêrî:

"Beşar Esed hewla serkevtinê di qada şer de dide, ne di gotûbêjan de".


Sedîqî:

"Me gotûbêj qebûl in, û me şer bi tu welatekî re nine".

# Berjewendiya neteweyî û derfeteke dîrokî

## ENKS ITÎRAFÊ BI KANTONÊN PYD NAKE







Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ku li gorî îmkan, û bi bê danîna tu ferq û cudahiyekê, piştevan û xemxorê Kurdên Sûriyê bûye, û di demekê de ku Buhara Erebî rû li Sûriyê kiribû û Kurdên Sûriyê û bi taybetî partî û aliyên sereke û kevn ên Kurdistana Sûriyê, tu trîbonek bo gehandina dengê xwe bi xelkê navxwe yê Kurdistanê tunebûn, PDKÎ wekî erkeke neteweyî û nîştimanî pêwendiyeke dostane di gel wan danî, û heya ragehandinên xwe jî xistne xizmeta wan de, bona vê ku ew bikarin pireke qahîmtir ji berê di navbera xwe û xelkê xwe yê belengaz de ava bikin.

Niha jî ku ew partî û alî gellek trîbon li ber destê wan de hene, û di asta navneteweyî de jî têne bangkirin û hemşêvirî bi wan re tê kirin, û ji aliyekî din, aliyekî tevgera Kurd kariye di navxwe ya welat de, xwebirêveberiyekê rabigehîne, PDKÎ pê kêfxweş e û her wek ku di daxuyaniya PDKÎ de jî hatiye ku: "Bidestvegirtina îdare û birêvebiriya her yek ji beşên Kurdistanê ji aliyî xelkê xwecihî, ji riya hilbijartineke azad û dmokratîk û kurtkirina destê zordarên dîktator li ser Kurdistanê xwesteke rewa û demokratîk a xelkê ye û PDKÎ piştevaniyê lê dike.

Di heman demê de nîgeraniya xwe eşkere dike ji her cure xwesepandin û takrewiyê, ji aliyê her girûp û partiyekê ve be, jiber ku ew şêwe reftar di berjewendiya xelkê de nine, û dibe sedema jidestçûna firsendan".

Bê guman daxuyaniya PDKÎ vê yekê bi eşkereyî dibêje ku hekî ew xwebirêveberî hemû aliyek têde beşdar bin û xwesepandin têde nebe, xelk ji destê dîktatoriyê wê rizgar bin û bi mafên xwe şa bin, lê berevajiyê vê yekê metirsiya vê hindê heye ku Kurd vê derfeta zêrîn ji dets bidin, û nekarin ji destê vê hemû zulm û zordariyê rizgar bin, û neyarên Kurdan jî guman têde nine ku ji bo derxistina vê derfeta zêrîn ji detsê Kurdan di nava hewlên gemar de ne.

Ji aliyeke din ve mixabin ew kanton tu nav û nîşaneke neteweyî pêve diyar nînin ku her vê yekê jî guman bo gellek kes û aliyan çêkiriye, lewra şiroveyên metirsîdar ji bo vê yekê têne kirin û tirsa vê hindê heye ku rejîma Sûriyê ekterê sereke yê avakirina van kantonan be, bi vî awayî ku niha em dibînin.

Lewra hewce ye ku avakerên herêma xwebirêvebir li hemberî van şiroveyên metirsîdar de bersivder bin, û ne li ser bingeha berjewendiyên partîtiyê, belkû li ser bingeha berjewendiyên neteweyî kar bo avakirina deshilateke tewaw neteweyî bi nav û nîşanên neteweyî û bi beşdariya hemû aliyên siyasî ên Kurdistana Rojava bikin, û daxwaziya hemû pêkhateyên nav Kurdistana Sûriyê berçav bigrin.

Bê guman wê demê hem deshilateke bi hêz û qahîm wê hebin û hem jî dijminên neteweya Kurd nikarin ji vê valahiya di navbera hêzan bi qazancê xwe mifahê wergirin.

Niha ew kanton hatine avakirin û em hêvî dikin heya çar mehên din ku hilbijartineke giştî dest pê dike, birêvebirên van kantonan bikarin bi bê ferq û cudahî di xizmeta hemû xelkê van herêman de bin ku deshilat têde hene û bikarin rewşeke azad û demokratîk di hemû warî de pêk bînin. Herwisa em hêvî dikin ku di hilbijartina pêşiya me de kurd bikarin deshilateke demokratîk ji xwe re ava bikin û tu aliyek li derveyî vê herêmê de nemîne. Wê demê hemû Kurdekî azadîxwaz û hemû partiyeke nîştimanperwer bi kêfxweşî ve pêşwaziyê ji wan dike, û bi şanazî ve pêwendiyê di gel wan didanê, û heya amade dibe ku her nirxekê jî bo serkevtina wan bide.


Şehab Xalidî

Herwek vê ku PDKÎ gellek caran berjewendiya xwe ya hizbî kiriye goriyê berjewendiyên parçeyeke din a nîştiman. Ku wisa bû serkevtin di yekîtî û yekdengiya li ser pirsên stratejîk de ye, û pêşkevtin jî di deng û bîrûrayên cuda de ye, bila em hemû li ser vê bingehê kar û tekoşîna xwe bimeşînin da ku em bikarin bi mafên xwe yên mirovî û siyasî şa bibin.



# Çareseriya pirsa Kurd li Kurdistana Bakûr







**Kazim Agirî**

Bê guman hertim gelê Kurd li ser vê baweriyê bûye ku pirsa Kurd bi riya diyalogê bê çareserkirin, û ew yek jî bi sedan carî hatiye ceribandin, lê mixabin dewletên deshilatdar yên ku mafên Kurdan binpê dikin, bi tu awayî heya niha amade nebûye ku destê aştiyê bo aliyê kurdan dirêj bikin, ew yek jî bûye sedem ku Kurdan şik û guman li ser vê pêvajoya çareseriyê hebin, û ew naxwazin ku cardin li ser wan, lîstikên gemar bêne meşandin.

Tiştek bi navê piroseya aştiyê niha di Turkiyê de hatiye rojevê û di cîhanê de jî bilav bûye.

Lê niha gellek kes ji xwe pirs dike ku gelo ew pêvajoya çareseriyê, wê bikare pirsa Kurdan çareser bike an ne? Ez bixwe ne bawer im ku di rewşa niha ya ku Turkiye têde dijî, pêvajoya aştiyê ser bikeve.

Di Turkiyê de AKP, CHP, û MHP wekî hêzên sereke têne naskirin, AKP ku deshilatdar e, û CHP û MHP jî ku xwe weke opozisyon û parêzerên hêla nawendiya Ataturk dibînin. Ji aliyekî din ve di nava Turkiyê de dewleta Kûr heye ku wekî dewleteke di nava dewleteke din de kar dike.

Dibe ew siyaseta bê ronîkirin, ka di rewşeke bi vî awayî de pirsa Kurdan wê çawa çareser bibe.

Di sala 1993'an de agirbesek ji aliyê PKK ve hate ragehandin, û Turgut Ozal jî bas ji çareseriya pirsa Kurd bi awayê aştîxwazane kir, lê mixabin navbirî bi nexweşiyê koça dawiyê kir, herçend şêweya mirina wî heya niha jî şik û guman li ser hene.
Lewra bi raya min hekî dewlet niha bixwaze pirsa Kurd çareser bike, divêt vê rastiyê qebûl bike ku gelê kurd û partiyên kurd û bi taybetî PKK aliyekî sereke yê gotûbêjan û mixatebê wan e.

Mixabin dewlet hewil dide ku Kurdan di Turkiyê de ji pirosa çareseriyê dûr bike, lewra jî nekarî pêngaveke berçav û hestpêkirî ji bo çareseriyeke berdewam bavêje.

Herwisa hewce ye ku ji bo çareseriya pirsa Kurd dewleta kûr têk biçe. Di rastî de Ergenekon û Fethulla Gulen jî rewşa Turkiyê aloztir kirine.

Lewra bo çareseriyê hêşta jî em dibe di bendê bimînin, ka bibînin pêvajo wê çawa here pêş, û hekî ew pirsa giring çareser be, wê demê mirov dikare bêje ku dewleta kûr di Turkiyê de têk çûye.

---

**Doma R: 2**

Îslamî li hemberî welatên Rojava, bi buhaya serkut û rojreşiya herî zêdetir a xelkê di navxwe de bûye. Raporê bas li ser tundbûn û zêdetirbûna bidarvekirin û destbiserkirina xebatkar û mafxwazên gelê Kurd di Kurdistana Îranê de kiribû, û cardin vê rastiyê eşkere dike ku gelê Kurd û neteweyên din ên mafxwaz, tu caran bi zext û givaş û tirsandinê morala xwe ji dest nadin û rikeberiya wan tevî rejîmê bona bidestanîna mafên xwe ên rewa wê her berdewam bimîne.

Di beşeke din a raporê de basek li ser pirsa Kurd û guherînkariyên vê dawiyê ên beşên cuda cuda ên Kurdistanê hatibû kirin û li ser vê baweriyê bû ku: Di Kurdistana rojava de derfeteke baş derketiye holê ku hekî Kurdên vê beşê bi hişyarî û yekgirtî û beşdariya tev alî li ser bisekinin û bernameyeke baş jêre danên, dikarin pêşerojek baş bo vê beşê dabîn bikin. Derheq bi ragehandina Kantonên vê beşê bona îdarekirin û birêvebirinê, pilînom li ser vê baweriyê bû ku:

- Dana îdare û birêvebirina her yek ji parên Kurdistanê bi xelkê xwecî ji rêya hilbijartinên azad, wekhev û demokratîk û kurtkirina destê zordariya dîktatoran li ser Kurdistanê, xwasteke rewa û demokratîk a xelkê ye, û PDK Îranê piştevaniyê jê dike.
- Di heman demê de nîgeraniya xwe nîşan da li hemberî her cure xwesepandin û takrewiyekê di vê derheqê de ji aliyê her girûp û partiyekê ve be, jiber ku riftarên weha ne bi qazancê xelkê ne, û dibe sedema jidestçûna derfetan.

- Cuda ji vê yekê, di îdare û nasandina wan kantonan de tu hêma û nêşaneke Kurdistanî û neteweyî nakevin ber çav, lewra pilînomê hêvî xwest ku xûşk û birayên me di vê beşa Kurdistanê de bi riheke demokratîk û dûr ji her cure tevxwazî û zeqkirina berjewendiyên hizbî, li hemberî berjewendiyên netewî de pêngavan bavêjin û ji derfetên baş mifhê wergirin.

Li Kurdistana Başûr de, serbarê vê ku hilbijartinek demokratîk bona destnîşankirina nûnerên parlemêntoyê bi serkevtine ve di heyameke kurt de bi rêve çû, lê paşketina pêkhatina hikûmetê bûye sedema nîgeraniya akinciyên vê beşa Kurdistanê û tewahiya dilsozên Kurdan. Lê eva ku zêdetir cihê nîgeraniya pilînomê bû, destêwerdanên Komara Îslamî di vê beşa Kurdistanê û di nava karûbarên hindek alî û partiyan de bû ku niha bi awayekî eşkeretir ji caran xwe nîşan dide.

PDKÎ li gorî şarezayî û ezmûna xwe a 35 salî tevî Komara Îslamî bi zelalî dizane ku, ev rejîma li dijî Kurdan e û seqamgîrî û aştiyê bo Kurdan naxwaze, û destêwerdanên vê rejîmê bo tevdanîkarî û çêkirina duberekî û têkdana vê rewşê ye ku di Kurdistana Başûr de heye, û bûye striya çavên wê, û bi hemû awayekî li dijî herêmê pîlangêriyê dike, lewra pilînomê hêvî xwest ku hikûmeta herêmê û partiyên vê beşê ji Kurdistanê bi hişyarî û çavek vekirîtir li Komara Îslamî û riftarên wê li Kurdistana Başûr binêrin.

Pilînom derheq bi Kurdistana Bakûr li ser vê baweriyê bû ku nêzîk bi salekê berî niha piroseyek di navbera hikûmeta Turkiye û PKK'ê de derketiye holê, lê her weke berê ku Partiya Demokrat nîgeraniya xwe di vê derheqê de nîşan dabû, niha jî li ser vê baweriyê ye ku pirose bi lewazî û li ser xwe diçe pêş, û hêviyê dixwaze ku pêvajoya aşîtiyê li Bakûrê Kurdistanê ber bi bidestveanîna mafên netewî û siyasî ên Kurdan here pêş.

Pilînomê hêvî xwest ku aliyên vê piroseyê bitaybet hikûmeta Turkiyê pêngavên micid bona çareserkirina pirsa Kurd bavêje.

Di beşek din a karê pilînpmê de gelaleya PDKÎ û hevalên berê derheq bi yekgirtina Partiya Demokrat kete ber bas û piştî nîqaş û lêkdaneveya wan, pilînoma şeşem gehîşte vê encamê ku:
Partiya Demokrat amade ye ku danûstan û gotûbêjên xwe tevî hevalên berê bi merema yekgirtina Partiya Demokarat a Kurdistana Îranê tevî hevalên berê li ser van bingehan bidomîne:

1-Yekgirtina PDKÎ û hevalên berê li ser bingeha wan biryar û pesendkiriyan ku di kongireya 13'ê, kongireya pêş veqetiyanê, û ji aliyê hemûyan ve hatiye pejirandin. Ev pesendkirî, nav, arm û tewahiya wan pênaseyên partiyê ji xwe digire ku, di wî çaxî de deng jê re hatiye dan.

2- Hûrdekariyên din ku yekrêziyên partiyê bihêz dikin, herweha çavaniya amadekirina kongireya hevpar, hewce ye ku berî kongirê lihevkirin li ser wan bê kirin û kongireya pêşerojê bi awayekî asayî û bi merema diyarîkirina siyasetên giştî ku di rapora siyasî de wê ji kongirê re bên pêşkêşkirin û deng jêre wê bêne wergirtin, pejirandina bername û peyrewa hundirîn û hilbijartina endamên rêberiyê wê birêve here, û tev alî wê girêdayî bin bi biryar û pesendkiriyên kongirê.

Di dawiya karê pilînomê de, hejmarek xalên teşkîlatî û organî ên partiyê li ser bingeha pêşniyara Deftera Siyasî ketin ber bas û, biryarên hewce li ser wan hatin dayîn.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**15.11.1392**
**04.02.2014**

# Paşvemana pêkanîna Hikûmeta Herêmê û encamên wê



Şemal Terxîbî




Heyamekî berî niha û di 21.09.2013'an de, piştî çendîn rojan propagendeyên ji bo hilbijartina nûnerên parlemênta Herêma Kurdistana Îraqê, di rewşeke azad û demokratîk de, nûnerên tewahiya partî û aliyên siyasî, ji aliyê xelkê Kurdistanê ve hatin hilbijartin.

Lê mixabin ku berevajiyê çavnihêriyan û serbarê serkevtina di vê ezmûna demokratîk de, heya niha jî pêkanîna hikûmetê neketiye çarçoveya piratîkê de, ku ew yek bi tewahî bûye sedema nîgeraniya rûniştvanên Kurdistana Başûr, û tewahiya xemxorên Kurd li her çar parçeyên Kurdistanê.

Li cem tewahiya Kurdên nîştimanperwer rohn û eşkere ye ku Herêma Kurdistana Îraqê serbarê hemû kêmasiyên xwe ezmûneke giring e.

Her li ser vê bingehê jî serkevtina vê ezmûnê serkevtina hemû takên Kurd e, û berevajî vê yekê paşveman û têkçûna ezmûnan li Herêma Kurdistanê de, wekî zirar û kêmasiyeke hemû alî ji bo hemû Kurdan tê pênasekirin.

Ji vê dîtingehê ve û bi berçavgirtina vê rastiyê ku Kurdistan bi dirêjahiya dîrokê, xwediyê çendîn dijberên navxweyî û derekî bûye, em dikarin bêjin ku yek ji encamên nigatîv ên paşveman û pêknehatina Hikûmeta Herêma Kurdistanê, ev e ku rê ji bo destêwerdana neyarên ezmûna Herêma Kurdistanê, ku yek ji wan Komara Îslamiya Îranê ye xweş dibe.

Dirêjîkêşana rewşa ku me îşare pê kir, di sê waran de bi qazanca Komara Îslamiya Îranê ye: Yekemîn, herwekî me îşare pê kir Kurdistana Îraqê kariye, û di pêşerojê de jî dikare piştevanê bihêz yê siyasî, aborî û çandî be bo Kurdên Kurdistana Îranê, wate hebûna azadiyên siyasî di vê para Kurdistanê bandora xwe ya rasterast li ser bîrkirina siyasî ya Kurdên Kurdistana Îranê û bihêzbûna warê aborî ya vê para nîştiman hebe.

Duyemîn, eva ye ku serkevtina ezmûna ku me qala wê kir, di dirêjheyam û kurtheyam de dikare vê boçûna şaş verewîne, ku Kurd wekî neteweyeke paşvemayî û ne kêrhatî dizanî, ku tu yek ji wan aliyên baskirî bi qazanca rejîma Îranê ninin.

Lê ya sêyemîn ev e ku, siyaseteke hertimî ya Komara Îslamî ku bi dirêjahiya temenê xwe yê biyom berçav girtiye û dike, siyasetek ku em dikarin wekî kok û binetara rejîmê û wekî eslek di siyasetên vê rejîmê de bas bikin, wate destêwerdana di nava karûbarên welatên din de, û hewildan bona pêkanîna tevdanîkarî û têkdanan e.

Niha jî her destêwerdana rejîmê di nava karûbarên Herêma Kurdistanê û heya hinek aliyên herêmê tê dîtin, ku eva jî di demekê de rû dide ku ezmûna 35 salî ya deshilatdariya Komara Îslamî eşkere kiriye ku ev rejîma rejîmeke serberedayî, dijî Kurd, û tevdanîkar e ku û tenahiyê ji bo Kurdistanê naxwaze, û heya em dikarin bêjin ku herêma Kurditanê bûye kelema çavên Kmara Îslamî ya Îranê.

Lewra hewil dide ku ji valahiya avanekirina Hikûmeta Herêmê, mifaheke şaş wergire û bikare armancên xwe yên gemar bipêke. Ya ku di rewşeke bi vî rengî de dikare ezmûna Herêma Kurdistanê ji vê rewşê rizgar bike, û destê Komara Îslamî ji Herêma Kurdistanê Kurt bike, berçavgirtina berjewendiyên bilind ên neteweyî ye ji aliyê partiyên siyasî û siyasetvanên Kurd û aliyên pêwendîdar ên pêkanîna hikûmetê.

Lewra bi giştî em dikarin vê yekê bêjin ku aliyên pêwendîdar di Herêma Kurdistanê de, li cihê vê ku bo areserkirina arşîeyên xwe rû li dijminên neteweya Kurd bikin, hewce ye ku rêz ji îrade û xwestekên xelkê Kurdistanê bigrin û xelkê Kurditanê bikne çavkaniya biryarên siyasî.



## H:Rehîm Gerguli

Nadir Hesenî kurê Hacî Elî, sala 1344'an (1965) li gundê Aliyawê ya ser bi bajarê Şinoyê hatiye dinê. Nadir Hesenî jî mixabin weke piraniya zarokên Kurdistanê di zarokatiya xwe de bi sedema destengî û hejarî û herweha nebûna îmkanatên xwendinê, ji xwendinê bêpar dibe.

Nadir Hesenî nasiyariya xwe tevî PDKÎ weha tîne ziman: "Sala 1361(1982)'an bo cara yekemîn min PDKÎ nas kir, jiber ku gellek ji xelkê gundê me di refên PDKÎ de mijûlî xebat û pêşmergatiyê bûn. Herweha hewceyî basê ye ku dengê Ehmed Şêrbegî bêjerê RDKÎ jî roleke girîng di zêdetir nasiyariya min bi rêbaza PDKÎ re hebû".

Nadir tevlîbûna xwe bi refên pêşmergên PDKÎ re weha bas dike: "Min pir hez dikir ku ez tevlî PDKÎ bibim lê min nedikarî. Sala 1983(1362)'an tîmeke pêşmergên Partiya Demokrat bi fermandehiya Mihemed Dastan hatibûn gundê me û di malekê de bûn ku xwediyê malê dizanî ku ez çiqas hez dikim pêşmergan bibînim û tevlî wan bibim, lewra ez gazî kirim û got pêşmerge di mala min de ne û tu jî were wan bibîne, ez çûm bal pêşmergan û min biryar da ku bibim pêşmerge, û êdî cardin nezivirîm mala xwe, piştî vê ku em çend rojan di menteqê de man, ez şandim Fêrgeha Siyasî -Nizamî ya PDKÎ li herêma Gelale ya ser bi parêzgeha Silêmaniyê, û di devreya 15'ê ya Fêrgê de beşdar bûm".

Nadir Hesenî roja herî xweş a jiyana xwe weha tîne ziman: "Min di jiyana pêşmergatiya xwe de rojên xweş û ne xweş zaf dîtine, lê rojên herî xweş ên jiyana min û bîranînên herî xweş ku hertim di mêjiyê min de ne, wî çaxî bûn ku em vedigeriyan menteqê û nava xelkê xwe de, ez niha jî bi vê hêviyê dijîm ku rojek weha bê û cardin ez vegerim nava xelkê xwe de".

Di hember de Nadir Hesenî rojên herî nexweş ên jiyana xwe weha bas dike: "Roja her nexweş a jiyana min ev e ku em weke hêza Simko li devera Şinoyê li ser vê yekê sax bûn ku sê binkeyên leşkirî ên rejîmê bi hevre bigrin, piştî êrîşê du binke hatin girtin lê binkeya sêyemîn ma, hêza Simko nameyek ji hêza Aware re şand û daxwaza hevkarî û piştevaniyê jê kir, Mixabin name ketibû destê Sipaha Pasdaran, em haydarî vê yekê nebûn û birçî û têni û mandî ber bi zozanên Îşke Şîv li nêzîk gundê Sofyan a ser bi bajarê Pîranşarê ve ketin rê, şev me li wir derbaz kir û sibêzû dema me lê nêrî her çar aliyên me ji aliyê hêzên Komara Îslamî ve hatine dorpêçkirin, ji demjimêr 5'ê sibêzû de şer despêkir û heya 8'ê şevê dom kir, mixabin di wî şerî de 2 pêşmergên PDKÎ şehîd ketin û di hember de fermandeyekî paye bilind ê Sipaha Pasdaran jî hat Kuştin, nexweşiya wî rojî di vê yekê de bû ku me çavnihêriya hêza Aware ya PDKÎ a Pîranşarê dikir ku bigihîje hevara me, lê me nedizanî ku name ketiye destê hêzên rejîmê de".



Nadir derheq jiyana xwe ya hevpar dibêje: "Sala 1999(1378)'an li Nawenda sê ya Kurdistanê min jiyana hevpar tevî Xomar Hemedemîn pêk anî û berhema jiyana me jî çar kur in".

Nadir Hesenî rû li xelkê Kurdistanê bi giştî û gencan bi taybetî dike û dibêje: "Xelkê Kurdistanê daxwazê ji we dikim ku alîkar û piştevanê partiya xwe PDKÎ bin û li pey siyasetên rejîmê nekevin û yekgirtî û tevî hevdu baş bin, herweha daxwazê ji gencan dikim ku pişta xwe nedin partî û netewa xwe, dersê bixwînin û hevkariya PDKÎ bikin, jiber ku di pêşerojê de her hûn wê rêberatiya PDKÎ bikin".

Nadir Hesenî bi hêviyekê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tîne, ev jî ev e ku: "Piştî zêdetir ji 30 salî pêşmergatiyê tenê hêviya min ev e ku PDKÎ û hêza pêşmerge serkevtinê bi dest bixe, û bi azadî cardin vegere Kurdistanê û nava xelkê xwe de, da ku xelk jî bizane PDKÎ her weke salên berê pêdagir û qahîm di cihê xwe de ye".



# Binpêkirina Mafê Mirovan

**Îbrahîm Urmiye**

Mafê jiyanê, mafekî bingehîn ê mirov e ku dibe bingeh ji bo hemû şêweyên din yên mafan, di nav de mafên siyasî, civakî û aborî.

Di her welatekî de ku îdam weke şêweyeke sizadanê, bi taybetî bi sedema çalakiyên siyasî tê bikaranîn, mafê bingehîn e mirov bi awayekî berfireh tê binpêkirin. Bi hindê re jî girêdayî, pêgavên ji bo sererastkirina mafê mirovan tenê wê demê dikarin bi cidî werin girtin ku sizayê îdamê bi rêve neçe.

Rêjeya îdaman di sala 2013'an û despêka 2014'an de li Îranê, ku xwe ji sedan îdaman dide, kûrahiya wê karesata ku gelên Îranê di warê mafên mirovan di bin siya Komara Îslamî de pê re rûbirû ye nîşan dide.

Ya ku bi îdaman re û hêj pitir kûrahiya karesata binpêkirina mafên mirovan li Îranê nîşan dide, ew sedem û hêcet in ku rêjîm bi kar tîne heya ku rewayiyê bide birêvebirina cezayê îdamê, yan bi navê xwe yê rast cinayetên derveyî mirovatiyê.

Li heyva Oktobra 2013 (Rezbera 1392) Komara Îslamî 16 çalakên siyasî yê Belûç bi toleya operasyoneke hêzên Belûç li dijî navendeke leşkerî ya xwe li Belûçistanê îdam kirin. Dadistanê Komara Îslamî li Belûçistanê bi eşkere û vekirî ragehand ku ew 16 kes bi toleya operasyona ku li gor rêjîmê hevbîrên wan kesan li dijî Komara Îslamî bi rêve biribûn hatine îdamkirin.

Piştre li Xûzistanê çendîn girtiyên siyasî ên Ereb ji ber ku çalakên Ereb niha bi awayekî çalaktir ji caran ji bo mafên xwe yên neteweyî kar dikin hatin îdamkirin. Li Kuridstanê jî her dema ku tevgera neteweyî ya Kurd çalakiyeke diyar encam dide, bi hêcetên cuda Kurd têne îdamkirin.

Di heyva Rêbendanê de, di wê demê de ku gelê Kurd ji bo pîrozbahiyên roja 2'ê Rêbendanê xwe amade dikir, Komara Îslamî li girtîgeha Urmiyê 5 kes îdam kirin.

Sedem çi dibe bila bibe, lê hegera îdamkirina wan di wan rojên beriya cejna mezin a gelê Kurd de, tenê ji bo çavtirsandinê bû.

Bi kurtî her dema ku çalakiyên siyasî yên gelên Îranê ji bo bidestxistina mafên siyasî û neteweyî pêşve diçe, rêjîm çeka îdamê li hemberî çalakên siyasî bi kar tîne.



**Şêweya îşkençekirin û bêhurmetiya bi xelkê welat di Îranê de**

Di wê demê de ku di girtîgehên Komara Îslamî de bi hezaran çalakên siyasî li benda qedereke nediyar in, û her roj bi gefa îdamê re rû bi rû ne, mijara îdamê weke çeka tirsandinê zêde metirsîdar e.

Ji bo wan girtiyan îdam weke şûrê demoklês e ku şev û roj raserî serê wan hatiye ragirtin, û her dem dikare bê cîbicîkirin.

Dema dewlet îdam u tolhildanê ji xwe re dike bingeha danustandin bi gelên welat re u li hember daxwazên wan çeka îdamê bikar tîne, wê demê tu hêviya hindê nîne ku pêşketinek di warê mafê mirovan de li Komara Îslamî bê çaverê kirin.

Rêjîmek ku mafê jiyanê ji çalakvanên siyasî re rewa nebîne, nikare bi gelan re di nava aştiyê de bijî. Îdam karesata mirovatiyê ye u heya ji binî re neyê sekinandin, çi pirsgirêkên siyasî u civakî li Îranê nayên çareser kirin.



Silêman Demîr:

# Romana kurmancî ne di rewşeke baş de ye



**Hevpeyvîn: Rûdaw**

**Pirs: Mamosta Silêman xwe ji xwendevanên Rûdawê re bide nasîn...**

**Bersiv:** Silêman Demîr: Ez sala 1956-an li Bakûrê Kurdistanê, li gundê Hebîsê yê navçeya Nisêbînê hatime dinê û li Nisêbînê mezin bûme. Min dibistan heta sala dawî ya amadekariyê li wir xwend.

Nîvê sala dawî, ez ji ber kar û bawериyên kurdewarî ji dibistanê hatim avêtin û xwendin li ser axa parêzgeha Mêrdînê li min hat qedexekirin. Sal 1977 bû, ku ez çûm Farqînê, navçeya Amedê, min dibistan li wir qedand. Dû re min dibistana mamostetiyê li Mêrdînê xwend.

Ez bûm mamoste, lê min mamostetî nekir. Ez ji sala 1986-an ve li Swêdê dijîm.

**Pirs: Te heta niha çedn roman û pirtûk nivîsandine?**

**Bersiv:** Heta niha pênc romanên min derketinê. Du ji wan li Swêdê, sisê jî li Stenbolê derketin. Her wisa min helbestên Mayakovskî ên bijarte wergerandin kurmancî û li Swêdê wek pirtûk hatin weşandin.

**Pirs: Te çawa û ji kengê ve dest bi nivîkariyê kir?**

> "Xwendevan hindik in, bazar hindik e, perwerdeya xwendin û têgihîştina edebiyata kurmancî nû ye, lewra romana kurmancî ne di rewşeke herî baş de ye"

**Bersiv:** Min wek piraniya kesan bi helbestan dest bi nivîskariyê kir. Ez ji sala 1975-an ve dinivîsim. Min pêşî hin helbest bi Tirkî jî nivîsîn. Lê ji nivîsên min ên wî çaxî tiştek nehatiye weşandin.

Ji xwe tiştekî zêde li ber destê min tune ye jî, piraniya wan di dema reva ji ber dewletê de wenda bûn. Piştî ez hatim Swêdê, min nivîsandin dom kir. Min bala xwe bêtir da ser çawaniya nivîsandina çîrok û romanan. Min demekê bi vê armancê li mala xwe de xwend û lêkolîn kir.

**Pirs: Yekemîn romana te kengê derket?**

**Bersiv:** Sala 1997-an cara pêşî romana min a bi navê Sorê Gulê li Swêdê di nav weşanên Nûdemê de derket û jê hat hezkirin.

**Pirs: Nêrîna te li ser romana kurmancî...**

**Bersiv:** Niha gellek roman bi kurmancî tên nivîsandin, hin ji wan baş in, hin baştir in. Hin kes û "rexnegir" derdikevin û dev davêjin romana kurmancî, berhemên "beredayî ne" dibêjin, lê ez di wê bawеriyê de me ku divê em binivîsin, tiştên tên nivîsandin pesend bikin, ji wan hez bikin û bixwînin, da ku romannivîskariya me jî ava bibe. Çi netewe, çi welat û ziman hema bi carekê re nigihîştine asta baş û romanên baş.

Ez dikarim bi hêsanî bêjim ku îro bi dehan roman û çîrokên kurdan ên di asta romanên dinyayê de hene, lê ji ber ku nivîskarên me bêxwedî ne, heta berî çend salekî zimanê me qedexe bû, romanên me jî bêxwedî dimînin. Xwendevan hindik in, bazar hindik e, perwerdeya xwendin û têgihîştina edebiyata kurmancî nû ye, lewra romana kurmancî ne di rewşeke herî baş de ye. Lê niha ji doh baştir e, wê sibe jî ji îro baştir be. Niha derfet li Tirkiyê li ber kurmancî vedibin, ez bawer dikim ku wê rewş baştir bibe.

**Pirs: Pêwendiyên te bi nivîskar û rewşenbîrên kurd re çawa ye?**

**Bersiv:** Pêwendiyên min bi gellek nivîskar û rewşenbîrên kurdan re hene. Min dewreyekê seroktiya Komeleya Nivîskarên Kurd li Swêdê jî kir.

Ez di derberê karên xwe de bi dostên xwe re dişêwirim, û pirsgirêkên edebiyata kurdî em li se dipeyvin û em alîkariya hevdu dikin.

## Gotinên Navdaran




**Qermîçok ne di dilê mirov de, di eniya mirov de çê dibin, jiber ku ruh qet pîr nabe.**

J.A. Garfield

**Ger hêvî nemîne, zewqa jiyanê jî namîne.**

Emile Zola

**Hêvî nîvê cesaretê ye.**

Balzac

**Ji bo yên dijîn hêvî, ji bo miriyan jî bêhêvîtî heye.**

Theokritos

**Şerm xemla ciwanan, rûreşiya kal û pîran e.**

Aristo

**Dil li ku be, welatheziya rastî jî li wir.**

Berkeley

**Em ji welatê xwe hez bikin, ew welatê bavê me ye jî.**

scbiller

a. Tîpên dengdêr

Dengdêrên girdek A E Ê I Î O U Û
Dengdêrên hûrdek a e ê i î o u û

b. Tîpên bêdeng

Bêdengên girdek B C Ç D F G H J K L M N P Q R S Ş T V W X Y Z
Bêdengên hûrdek b c ç d f g h j k l m n p q r s ş t v w x y z

c. Pevdeng

Xw: xwendin, xwîn, bixwîne, xwe, xwê, xwelî, xweş




## a. Tîpên jêrîn bixwînin û awayên wan ên hûrdek binivîsin.

| | | | | |
|---|---|---|---|---|
| A C D | E F Ê | B Ç H | Y Z I | X U W |
| .......... | .......... | .......... | .......... | .......... |
| G V Û | Î J O | Q M L | T H R | N Ş K |
| .......... | .......... | .......... | .......... | .......... |
| P S V | X Ê W | Î Q Û | I R O | W U X |
| .......... | .......... | .......... | .......... | .......... |

## b. Tîpên jêrîn bixwînin û awayên wan ên girdek binivîsin.

| | | | | |
|---|---|---|---|---|
| a z b | y c x | ç w v | û d t | e ş s |
| .......... | .......... | .......... | .......... | .......... |
| r ê f | q h o | p l m | g i k | l î n |
| .......... | .......... | .......... | .......... | .......... |
| m a q | w q ê | x j û | a b z | w û x |
| .......... | .......... | .......... | .......... | .......... |

# Tiştonek



A: Mahir Berwarî

1- Lawkê Deştanî, çû serê banî, qun tîjtir e ji didanî.
- Lawk ê Elman a, digerit li ser bana, quntîjtire ji didan a.
- Çeq e leq e/meqe, heçî yê destê xwe bidê ehmeq e.

2- Zil e wekî zîwan nexişandiye wek tîman, ne dîne û ne îman, yarê hemî rihan.
- Tiştek heye tiştinok, li nav kevir e xiştinok, ne ber heye ne piştok

3- Apê sincik bazda quncik
- Helhelîko melmelîko, simbêl tîjo guh belîko.

4- Fatka melê, têtu ji kelê, rih pêvene, simbê belê.
- Helhela simbêl bela, wê di-gerhit li ser lêvêt kutela

5- Tiştekê mino tiştanî, li ser textê sultanî,
pêxémberî şûrê xwe di st danî.
- Di avê de pêlewan e, li be-jayiyê/dêmî bê can e.

6- Himhime, darî bisime.
- Hindî min li bîr e, Mihemed axa wezîr e, li nav teyra, êkê bi şîr e.

**Têdîtin: Amadekar dest-kariya devoka metelokan nekiriye**

**Xwendevanên hêja!**

**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi rêya E-maila Agiri2003@gmail.com ji me re bişînin.**

# AGIRÎ

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Tel: (+)9647503640792

## Dr. Îsmaîl Bêşikçî serdana monomênta şehîdên Viyenê kir



**Dr. Îsmaîl Bêşikçî piştî danîna qevdeke gulan li ser monomêntên şehîdên Viyenê, axavtinek pêşkêş kir. Wî di axavtina xwe de, Dr. Qasimlo wekî mirovek bê mînak nirxand ku ne tenê di nava neteweya Kurd de, belkû di asta Rojhelata Navîn de jî, kesayetiyekî diyar û bi bandor bû.**

Dr. Îsmaîl Bêşikçî got ku Dr. Qasimlo mirovdost, azadîxwaz, demokrat û aştîxwaz bû, ku ji rêya armancên bilind yên xwe de, canê xwe gorî kir. Ew yek jî divêt gellek bilind bihê nirxandin.

Navbirî bi tundî rejîma Komara Îslamî a Îranê şermezar kir ku bi awayekî namirovane tevî peyamhinêrê aştiyê bizivîn û bersiva aştîxwaziya wî bi gulleyan dan.

## Mursî bi tawana hevkarî tevî Sipaha Pasdaran hate dadgehîkirin



**Serkomarê ji kar dûrxistiyê Misrê Mihemed Mursî, bi tawana hevkarî tevî Sipaha Pasdarên Komara Îslamî û girûpên tundrev û terorîst dîsan wê bê dadgehîkirin.**

Malpera BBC'ê eşkere kir ku Mihemed Mursî serkomarê ji kar dûrxistiyê Misrê serbarê hevkarî tevî Sipaha Pasdarên Komara Îslamî, bi hevkarî tevî Tevgera Filistîn û Hizbullaha Lubnanê ji rêya dezgehên sîxorî û darêtina pîlanên terorê, ji aliyê serdozgerê Misrê ve hatiye tawanbarkirin. Hewceyî basê ye ku hekî tawanên Mihemed Mursî bêne selimandin, li gorî yasaya bingehîn a Misrê navbirî wê bi cezaya darvekirinê bê mehkûmkirin.

Navbirî bi "revîna ji girtîgehê di sala 2011'an de, handan û tûjkirin bona komkujiya xelkê Misrê û herweha bêrêzîkirin bi karbidestên welatê Misrê" hatiye tawanbarkirin.

## Ka binêrin bilindahiya pirên herî bilind ên cîhanê çi qas e



1.Pira çemê Sîdo li welatê Çînê 496 mêtiran bilindtir e ji asta rûyê behrê.
2.Pira Hêgîgyo Corc li welatê Kîniyayê 393 mêtiran bilindtir e ji asta rûyê behrê.
3.Pira Balûratê li welatê Miksîkê 390 mêtiran bilindtir e ji asta rûyê behrê.
4.Pira çemê Bêypanciyang li welatê Çînê 366 mêtiran bilindtir e ji asta rûyê behrê.
5.Pira Nayjay li welatê Çînê 350 mêtiran bilindtir e ji asta rûyê behrê.
6.Pira Çemê Jîcîng li welatê Çînê 294 mêtiran bilindtir e ji asta rûyê behrê.
7.Pira Royal Corj li wîlayeta Kolorado a Amerîkayê 291 mêtiran bilindtir e ji asta rûyê behrê.
8.Pira Mayk Nokalgin li wîlayeta Arîzona a Amerîkayê 271 mêtiran bilindtir e ji asta rûyê behrê.
9.Pira Mîlav Viyadokt li welatê Firansayê 270 mêtiran bilindtir e ji asta rûyê behrê.
10.Pira Corc li wîlayeta Vêrcîniya a Amerîkayê 267 mêtiran bilindtir e ji asta rûyê behrê.